**Hevpeymana Civakî**

**Pêşgotin:**

Ji bo pêkanîna dadmendî, azadî û demokrasiyê, li ser hêmanên civaka ekolojîk û wekhev, bêyî cudahiya di navbera nîjad, ol, netew, bawrî, mezheb û zayendan. Ji bo ku pêkhateyên siyasî û exlaqî yên civaka demokratîk bighêjin ku erkên xwe yên hevguncînî, piralîtî û jiyana hevbeş. Jibo rêzgirtina mafên jinan yên çarenûsiyê, misogeriya mafên jinan û zarokan. Ji bo misogeriya xweparastin û parastina rewa û rêzgirtina azadiya ol û baweriyan.

Em gelên herêmên rêvebiriya xweseriya demokratîk ên Kurd, Ereb, Suryan (Asûrî, Kildanî û Aramî) Turkmen, Ermenî û Çeçenan bi iradeya xwe ya azad vê hevpeymanê radighînin.

Herêmên rêvebirya xweseriya demokratîk têgiha dewleta netewî, leşkerî û olî, her wiha rêvebirya navendî û desthilata navendî na pejirîne. Li ser hemû awayên lihevhatin û kevneşopiyên demokrasî û piralîtiyê vekiriye, da ku hemû pêkhateyên civakî, çandî, netewî û etnîk karibin bi rêya saziyên xwe xwe ifade bikin. Rêzgirtina sînorên Sûryê, pîvanên mafên mirovan û parastina aşîtiya navxweyî û navnetewî.

Ji bo pêkanîna hêmanên hevpeymana civakî û avakirina civaka demokratîk bi rêya pêkanîna rêvebiriya xweseriya demokratîk ya ku misogeriya dadmendiya civakî ye û Ji bo avakirina civaka şaristanî, viyana hemû pêkhateyên civaka rêvebiriya xweseriya demokratîk yên Kurd, Ereb, Suryan, Ermen Çeçenan bi viyana pêkhateyên din yên gelê Sûriyê re bû yek da ku di nava Sûriya demokrtîk de, rêvebiriya xweseriya demokratîk bibe sistemeke siyasî û rêvebiriya civakî. Ji bo pêkanîna van armancan û pêkanîna vê rêvebiriyê me ev hevpeyman saz kir û ragihand.

**Beşê Yekemîn**

**Hêmanên giştî**

**Xala yekemîn:**

Navê vê peymanê Hevpeymana Civakî ya rêvebirya xweseriya demoratîk a kantonên (Cezîrê, Kobanê û Efrînê) ye. Pêşgetina Hevpeymana Civakî a rêvebiriya xweseriya demokratîk parçeyekî vê peymanê û jê nayê veqetandin.

**Xala duemîn:**

a- Jêdera desthilatiyan gel e, gel xwediyê desthilatiyê ye û bi rêya sazî û meclisên xwe yên hilbijartî birêve dibe. Hemû desthilatên dijberî hevpeymana civakî ya herêmên rêvebiriya xwesriya demokratîk, ne rewa ne.

b- Jêder û bingeha hemû meclis û desteyên rêvebir yên civakê yên ku li ser bingeha demokrasiyê hatine avakirin gele. Nabe ku tu kes yan kom yekdestiyê bike.

**Xala sêyemîn:**

a- Sûriyê dewleteke azad, demokrat û serbixwe ye, sisteme wê perlementerî, federal, piralî û demokratîke.
b- Kantonên rêvebiriya xweseriya demoikratîk (Cezîrê, Efrînê û Kobanê) parçeyekî xaknîgariya Sûriyê ye û bajarê Qamilşo jî navenda rêvebiriya xweseriya demokratîk a kantona Cezîrê ye.
c- Kantona Cezîrê herêma hevbeşe, tê de Kurd, Ereb, Suryan, Ermen, Çeçen û olên Islam, Xiristiyan, Êzîdî bi heve re dijîn, ev pêkhate hemû li ser hêmana biratî û jiyana hevbeş bi hevre dijîn.
d- Ev hevpeyman ji bo kantonên rêvebiriya xeseriya demokratîk pêkane û Meclisa Zagonsaz a demî nûneriya hemû kantonan dike.

**Pergala rêvebiriya xwesriya demokratîk di kantonan de**

**Xala Çeremîn:**

1- Meclisa Zagonsaz 2- Meclisa Rêvebir 3- Komîseriya Bilind a Hilbijartinan 4- Dadgiha Makzagonî a Bilind 5- Meclisên Herêmî.

**Xala pêncemîn:**

Bajarê Qamişlo navenda kantona Cezîrê ye û rêvebiriya wê ye.

**Xala Şeşemîn:**

Hemû kesayet û pêkhateyên rêvebiriya xweseriya demokratîk li pêşiya zagonan di warê maf û erkan de wekhev in.

**Xala heftemîn:**

Hemû bajar û herêmên xanîgarî yên sûriyê yên ku hevpeymana civakî dipejirînin, ji mafê wa ye ku tevlî kantonên rêvebiriya xweseriya demokratîk bibin.

**Xala heştemîn:**

Hemû kantonên rêvebiriya xweseriya demokrtîk, ji mafê wane ku kar û barên xwe yên herêmî birêve bibin û bi iradeya xwe ya azad rêvebirî û meclisên xwe ava bikin û hemû mafên xwe yên ku ne li dijî xalên hevpeymana civakî ya herêmên rêvebiriya xweseriya demokratîk bin bi cî bînin.

**Xala nehemîn:**

Zimanên fermî yên kantona Cezîrê zimanên Kurdî, Erebî û Suryanî ne, her wiha mafê hemû pêkhateyên din jî heye ku bi zimanê xwe yê dayikê bêne perwerdekirin.

**Xala demehmîn:**

Kantonên rêvebiriya xweseriya demokratîk destwerdana di karên hundirîn ên dewletan de nake, mafên cîrantiyê diparêze û nakokiyan bi awayên aşîtiyane çareser dikin.

**Xala 11`mîn**

Ji mafê herêmên rêvebiriya xweseriya demokratîk e ku al, ablem û srûda wê hebe û bi zagoneke bêne destnîşan kirin.

**Xala 23`mîn:**

Ev rêvebirî nimûneya rêvebiriya xweseriya demokratîk a Sûriyê ye û parçeyek ji Sûriyaya pêşerojê ye, ya ku dê li sisteme nenavendiya siyasî bê damezrandin. Ji ber ku sistema federal ya herî pêkane ji bo Sûriyê û têkiliyên di navbera rêvebiriyê û navendê de li ser vê bingehê têne saz kirin.

**Beêş duemîn**

**Hêmanên serke:**

**Xala 13`mîn:**

Di vê peymanê de dezgehên zagonsazî, dadmendî û rêvebirî ji hev cuda ne.

**Xala 14`mîn:**

Rêvebirya xweser li gor hêmana dadmendiya demkî dê hemû projeyên nîjadperest yên ku rejîmên desthilatdar yên berê li dijî nişteciyên rêvebiriyê pêk anîne rake û alîkariya welatiyên ku ziyan li wan bûye bike.

**Xala 15`mîn:**

- Yekîneyên Parastina Gel (YPG) wek saziyeke netewî berpirsyarê ewlekarî û parastina axa hersê kantona ye, ji bo xizmeta berjeweniyên gel e, armanc û ewlehiya wî yan netewî diparêze, li gor hêmana xweparastina rewa tevdigere, têkiliya wê bi hêzên çekdar yên navendê re ji aliya Meclisa Zagonsaz ve bi zagonekê têne desnîşan kirin, li hember xeteriyên li dijî ewlehiya hindurîn û sistema giştî piştgiriya rêvebiriyên sivîl dike û fermanên xwe ji fermandariya giştî yan Yekîneyên Parastina gel (YPG) digre.
- Rêvebiriya girştî ya hêzên Asayişê desteya ewlekariya hindurîn e.

**Xala 16`mîn**

Sazkirna zagonên ku kiryar û biryarên rêvebiriyê ji derveyî çavdêriy dadgeriyê dihêle, qedexe ye.

**Xala 17`mîn**

Hevpeymana civakî, di hemû zagonan de tevlîbûna çalak ya ciwanan di nava jiyana siyasî û rêvebiriyê de misoger dike.

**Xala 18`mîn:**

Sûc û Ceza bi zagonan têne destnîşan kirin.

Xala 19`mîn

Bac û peregirtin bi zagonan têne destnîşan kirin.

Xala 20`mîn:

Peyman û belgeyên navnetewî yên derbarê mafên mirovan de parçeyekî serke û dewama vê hevpeymanê ne.

**Beşê sêyemîn**

**Maf û azadî:**

Xala 21`mîn:

Rêvebirî, li gor peyman û danezanên navnetewî, mafên mirovan û nirxên wî yên bilind misoger dike. Di rêvebiriyê de nirxê herî buha li ba kesan yan koman azadî ye.

Xala 22`mîn:

Danezana mafê mirovan û danezana navnetewî ya mafên sivîl, siyasî, çandî, civakî, abûrî û hemû danezanên din yên têkildar, parçeyekî vê hevpeymanê ne.

Xala 23`mîn:

a- Mafê her kesî heye ku bi nasnameya xwe ya Etnîk, zayend, ol, mezheb,çand û ziman, bijî.
b- Mafê herkesî heye ku li gorî hêmanên civaka Ekolojîk bijî.

Xala 24`mîn

Her kes û kom di raman, bawerî û derbirînên nêrînên xwe de azadin, eger ew derbirîn ne ji bo yekdestiyê bin û ne li dijî pergala civakî ya exlaqî û aşîtiya navxweyî bin.

Xala 25`mîn

a- Azadiya kesayetî parastiye û nabe kes ji derveyî zagonan bê binçav kirin.
b- Rumeta mirovan parastiye û nabe ku işkenceya fîzîkî û derûnê li tu kesan bê kirin. Yê ku bike tê ceza kirin.
c- Ji bo girtiyan mercên jiyana mirovane tê peyda kirin û zindana li şûna ku cihê cezakirinê bibin, bibin cihê rehabilîte û perwerdeyê.

Xala 26`mîn

Di hevpeymanê de mafê jiyana siyasî parastiye û cezayê darvekirnê tê rakirin.

Xala 27`mîn

Mafên Jinan yên jiyana siyasî, civakî, abûrî, çandeyî û hemû warên jiyanê heye.

Xala 28`mîn

Mafê jinan yê xweparastin û rakirina hemû awayên cudahiya zayendî heye.

Xala 30`mîn:

Hevpeyman mafên zarokan diparêze, xebitandin, bikaranîn, işkencekirina derûnî û fîzîkî zewicandina di temên biçûk de qedexe ye.

Xala 31`mîn

Di peymanê de ji bo her welatiyekî ev maf hene:

1- Mafê ewlekarî, aramî û istikrarê.
2- Perwerdeya bingehîn bêpere û mecbûriye.
3- Mafê bi destxistina kar, maleke pêkhatî û sigorteya civakî û tenduristî.
4- Dayik û zarok tên parastin û xwedî kirin.
5- Xwedîkirin û guhpêdana tenduristî û civakî ya Kal, pîr û astengdaran misogere.

Xala 32`mîn:

Mafên baweriyên olî parastiye û nabe ol bibe alava siyasetê û jibo dijîtî û dubendiyê bê bikar anîn.

Xala 33`mîn:

a- hevpeymanê de mafê damezrandina Partî, komele, sandîke û saziyên civaka sivîl û tevlîbûna wan li gorî zagonan, parastiye.
b- Di hevpeymanê de pir rengiya civakî ya nişteciyên herêmên rêvebiriyê, dewlemendkirin û pêşxistina çanda wan û azadiyên siyasî û çalakiyên wan yên abûrî parastiye.

c- Ola Êzîdî oleke bi serê xwe ye, ji mafê wa ye jiyana xwe ya civakî û olî birêve bibin û zagonên derbarê rewşa kesayetî de saz bikin.

Xala 34`mîn:

Di hevpeymanê de azadiya ragihandin, weşan û rojnamevaniy parastiye û xebatên wê bi zagonekê têne birêxistin kirin.

Xala 35`mîn:

Mafê weltiyan yê derbirîna nêrînan, girev û xwepêşandanên aşîtiyane heye. Ev maf bi zagonekê têne destnîşan kirin.

Xala 36`mîn:

Mafê her kesî yê bidestxistina zanyariyan û pêkanîna çalakiyên zanistî, hunerî û çandî parastiye.

Xala 37`mîn:

Mafê her kesî yê namzetî û hilbijartina hemû sazî û desteyan heye, ev jî bi zagonekî tê birêxistin kirin.

Xala 38`mîn:

Mafê her mirovî heya ku mafê koçberiya siyasî bixwaze û nabe ku koçber bê razîbûna wî bê vegerandin.

Xala 39`mîn:

Di hevpeymanê de wekheviya derfetan ji bo hemû welatiyan parastiye.

Xala 40`mîn:

Berhem, hebûnên serax û binax malên giştî yên civakê ne, awayên hilbiîrn, rêvebirin û xerckirina wan bi zagonekê têne destnîşan kirin.

Xala 41`mîn:

Erd û emlakên giştî yên herêmên rêvebiriya xweseriya demokratîk, yên gel in, awayên bikaranîn û belav kirina wan bi zagonekê têne destnîşan kirin.

Xala 42`mîn:

Mafê mulkiyet û mulkiyeta taybet parastiye, bêyî zagonan nabe kes ji bo bikaranîna emlakên xwe bê asteng kirin. Nabe milkên kesî jê bêne standin, eger ji bo berjewndiya giştî hate standin jî pêwîste buhayê wê bê dayin.

Xala 43`mîn

Sistema abûriyê li herêmên rêvebiriya xweseriya demokratîk de li ser bingha pêşxistina giştî, dadmend û dewamiyê tê saz kirin û pala xwe dide derfetên zanistî û tiknolociyayê. Armancên wê wê ku pêdiviyên jiyana mirovan pêk bîne û jiyaneke bi rumet misoger bike. Her wiha li ser bingeha pêşxistina hilbirînê û çalakiyên abûrî. Li gor hêmana rêvebiriya xweseriya demokratîk ya ku dibêje "Her kes dê li gorî karê xwe bistîne" abûriyeke hevbeş li ser bingeha pêşbirka rewa, bê ava kirin, yek destî bê qedexe kirin, dadmendiya civakî bê misoger kirin. Mulkiyeta netewî ya alavên hilbirînê bê misoger kirin, mafên karker û welatiyan bê parastin, xweza bê parastin û desthilatdariya netewî bê xwert kirin.

Xala 45`mîn:

Mafê her welatiyekî yê rêwîtiyê, veguhestinê û cih guhertinê heye.

Xala 46`mîn:

Maf û azadiyên ku di vê peymanê de hatine rêzkirin, pêwste neyê şîrovekirin ku ji bilî wan ti maf û azadiyên din tune ne.

## Rêvebiriya Xweseriya Demokratîk

## beşê çaremîn

### Meclisa Zagonsaz

**Xala 47`mîn**

Ew Meclisa Zagonsaz a Bilind a kantonên rêvebiriya xweseriya demokratîk e, ji aliyê gel ve bi rêya dengdanê hatiye hilbijartin û her 4 salan carekê tê hilbjartin.

Xala 48`mîn:

Pitşî ku komîseriya hilbijartinan ya Bilind encamên dawî yên hilbijatinan ragihîne bi 16 rojan, yekemîn rûniştina meclisê tê lidar xistin. Serokê Meclisa Rêvebir banga lidarxistina rûniştinê dike. Eger rûniştin ji ber hin sedemên awarte pêk nehat serokê Meclisa Rêvebir di nava 15 rojan de demekî ji bo rûniştinê detnîşan dike civîn bi beşdariya (50 +1) endaman dikare lidar bikeve. Rûniştina yekemîn bi serokatiya endamê bi temenê xwe mezintir tê lidar xistin. Di rûniştina yekemîn de hevserok û dîwana meclisê têne hilbijartin. Eger tu rewşên awarte nebin (li gorî rêziknameya meclisê) rûniştin aşkere tê lidar xistin.

Xala 49`mîn:

Li gorî hijmara nişteciyên herêm û bajarên rêvebiriya xweseriya demokratîk hijmara endamên meclisê tê destnîşan kirin, asta nûnertiya zayendeyan jî ne

kêmî 40% be. Her wiha li gorî zagona hilbijartinan nûnertiya Suryanan û ya Ciwnan jî bi taybetî tê destnîşan kirin.

Xala 50`mîn:

1- Endamên meclisê nikarin zêdeyê 2 caran bibin namzetên meclisê.
2- Dema her dewreyeke meclisê di rewşên awarte de, li ser daxwaza 1\4`ê endaman, yan li ser daxawza dîwana meclisê û bi erê kirina 2\3`ên endaman dikare ji bo 6 mehan bê dirêj kirin.

Xala 51`mîn:

Temenê hilbijêran dibe ne kêmî 18 salan be û temenê namzetên perlemanê jî dibe ku ne kêmî 22 salan be. Şert û mercên hilbijartinan bi zagonek taybet têne destnîşan kirin.

Xala 52`mîn:

Endamê meclisê di dema endamtiyê de wek perlementerekî ji destdayînê parastiye, ji bo nêrînên xwe nayê lêpirsîn, ji bilî sûcên darîçav, bêyî erêkirina dîwna meclisê nayê darizandin.

Xala 53`mîn:

Endamê meclisê nabe ku ji bilî xebatên meclsiê tu erk û pîşeyên din bike, piştî sûndxwarinê erkên wî yên berê têne rawestandin. Hemû mafên wî yên erkdariya berê parastî ne û dikare piştî endamdiya wî ya meclisê bi dawî bibe veger ser erkê xwe yên berê.

Xala 54`mîn:

Her herêmek ya kantonên rêvebiyea xweser meclisên xwe yên herêmê bi rêya dengdanê hildibjêre.

Xla 55`mîn:

**Erkên Meclisa Zagonsaz:**

- Rêziknameya kar û barên meclisê û pergala wê amade dike.
- Zagonên ku ji aliyê komîte û meclisên herêmê ve têne pêşkêş kirine saz dike.
- Çavdêriya kar û barên desteyên rêvebir û kargêr dike û lêpirsîna wan dike.
- Hevpeyman û lihevhatinên navnetewî erê dike.
- Dikare baweriyê bide meclisa rêvebir yan endamekê meclisê û dikare baweriyê jê bistîne jî.
- Rewşên şer û aşîtiyê radighîne.
- Detnîşnkirina endamên Dadgeha Makzagonî a Bilind erê dike.

- Biryara budçeya giştî dide.
- Siyaseta giştî û plansasiya pêşxistina abûrî destnîşan dike.
- Biryara Efûya giştî dide.
- Danezana Meclisa rêvebir erê dike.
- Herêmên rêvebiriya xweseriya demokratîk destnîşan dike û têkiliyên di navbera wan û navendê de bi zagonekê destnîşan dike.

**Beşê pêncemîn**

**Meclisa Rêvebir**

Xala 56`mîn:

**Rêvebirê kantonê (Hakim):**

a- Rêvebirê kantonê û rêvebirê meclisa rêvebir yê rêvebiriya xwesetiya demokratîk, li gorî pîvanên ku di hevpeymana civakî de hatine destnîşan kirin li şûna gel rêvebiriyê dike.

b- Yê bibe namzetê rêvebiriya kantonê pêwîste:
   1- Temenê wî  ji 35 salan zêdetir be.
   2- Hemwelatiyê Sûriyê be û nişteciyê herêmên girêdayî kantonê be.
   3- Pêwîste bi tu sûcên kirêt nehatine darizandin. Tevî ku rumeta wî lê hatibe vegrandin jî.

c- Nemzetiya ji bo rêvebiriya kanotonê wiha dibe:
   1- Piştî rûniştina meclisê ya yekemîn bi 30 rojan, serokê Meclisa Zagonzas banga hilbijartina rêvebirê kantonê dike.
   2- Daxaznameyên namzetiyê radestî Dadgeha Bilind têne kirin, dadgeh jî piştî lêkolînê di nava 15 rojan de daxwaznameyan erê dike yan red dike.
   3- Meclisa Zagonsaz rêvebirê kantonê hildibjêre, namzetê ku (50 +1) dengên endamên meclisê bistîne dibe rêvebirê kantonê.
   4- Eger tu namzetan piraniya dengan nestîne, namzetên ku dengên bêtir girtine dikevin hilbijartinê û yê ku di dengdana duemîn de dengên piraniya nedaman bistîne dibe rêvebirê kantonê.
   5- Dema erkdariya rêvebirê kantonê 4 salin. Ji roja sondxwarinê destpê dike.
   6- Rêvebirê kantonê berî ku erkên xwe destpê bike li pêşiya Meclisa Zagonsaz sonda zagonî dide.
   7- Rêvebirê kantonê cîgirekî yan zêdetir destnîşan dike û erkên wan destnîşan dike. Cîgir piştî erêkirina Meclisa Zagonsaz, li pêşiya rêvebirê kantonê sonda zagonî dide.
   8- Di rewşên ku rêvebirê kantonê nikaribe erkên xwe pêk bîne, yek ji cîgiran cihê wî digre.

**Ç- Erk û delametên rêvebirê kantonê**

1- Rêvebirê kantonê rêzê ji hevpeymana civakî re digre, xebatên rêvebiriyan bi rêk û pêk dike, yekîtî û desthilatdariya netewî diparêze.
2- Rêvebirê kantonê serokê Meclisa Rêvebir destnîşan dike.
3- Rêvebirê kantonê biryarên Meclisa Zagonsaz erê dike, û li gorî zagonan, biryar û fermanan dide.
4- Rêvebirê kantonê piştî aşkerekirina encamên hilbijartinan banga civîna Meclisa Zagonsaz dike.
5- Biryara dayîna xelat û nîşanan dide.
6- Li ser pêşniyara setokatiya Meclisa Rêvebir biryara efûya giştî dide.

a- Rêvebirê kantonê, bi rêya nûnerên gel yên di Meclisa Zagonsaz de, li pêşiya gel berpirsyare, di rewşên ixaneta mezin, sûcên kirêt û bêrêtiyê de, gel dikare wî li pêşiya Dadgeha Makzagonî a Bilind darezîne.

**Meclisa Rêvebir:**

Meclisa rêvebir di kantonê de pergala kargêrî û rêvebiriyê ya bilind e, li pêşiya Meclisa Zagonsaz berpirsyare, biryar, ferman û zagonên Meclisa Zagonsaz û saziyên dadmendiyê pêk tîne. Di navbera saziyên rêvebiriyê de xebatan kordîne dike.

Xala 57`mîn:

Meclisa rêvebir ji serok, hijmarek emdamên Meclisa Zagonsaz û desteyan pêk tê.

Xala 58`mîn:

Partî yan koma ku piraniya kursiyên Meclisa Zagonsaz wergitine, ji bo ku di nava mehekê de meclisa rêvebir amade bike tê erkdar kirin, meclisa rêvebir pêwîste ji aliyê (50 +1) endamên Meclisa Zagonsaz ve bê erê kirin.

Xala 59`mîn

Dema serokatiya Meclidsa Rêvebir 4 salin, serokê meclisê zêdeyî du caran nikare bibe serok.

Xala 60`mîn:

Serokê meclisa rêvebir dikre ji xwe re ji bo şêwirmendiyê çend endamên Meclisa Zagonsaz destnîşan bike.

Xala 61`mîn:

Şêwirmend di heman demê de serokê yek ji desteyên meclisa rêvebir e.

Xala 62`mîn:

Kar û barên rêvebiriyê û têkiliyên di navbera rêvebirî û saziyên din de bi zagonekê tê destnîşan kirin.

Xala 63`mîn:

Piştî avakirina meclisa Rêvebir û erêkirina wê, meclis bi daxuyaniyekê plansaziya demên pêş aşkere dike. Piştî ku plan ji aliyê Meclisa Zagonsaz ve bê erê kirin, meclisa rêvebir pêwîste di dema xwe de planê pêk bîne.

Xala 64`mîn:

Destnîşankirina erkdarên taybet, wekîlên desteyan û nûnerên rêvebiriya xweseriya demokratîk bi rêya bijartinê û erêkirina Meclisa Rêvebir û Meclisa Zagonsaz pêk tê.

**Meclisên Rêvebiriya Herêmî**

1- Kantonên rêvebiriya xweseriya demokratîk ji yekaneyên kargêriyê pêk tên, rêvebirî wan diparêze û li gorî pêwîstiyan wan diguhere.
2- Yekaneyên kargêriyê li ser hêmana nenavendiyê erk û berpisyariyên xwe birêxistin dikin. dalemtên kargêriyan, têkiliya wan bi rêvebiriya kantonê ve, hatina wan ya abûrî, çavdêriya karên wan, her wiha destnîşankirina serokên kargêriyan û erkên wan bi zagonan  têne destnîşan kirin.
3- Yekaneyên kargêriyê yên hermî meclisên xwe ava dikin, meclis bi rêya dengdana giştî, veşartî û rasterast têne ava kirin.

**Meclisa Dadgeriyê**

**Xala 65`mîn:**

Hêmana dadmendiyê serbixwebûna dadgeriyê ye, ew nûneriya wicdan û exlaqên gel dike. Dadgerî bi rêya dadgehên taybet bi lez çareserkirina dozan misoger dike.

Xala 66`mîn:

Yê tewanbar ta ku sûcên wî bi darizandê neyê pesend kirin, ew bê gunehe.

Xala 67`mîn:

Nûneriya herdû zayendan di hemû saziyên Meclisa Dadgeriyê de 40 %  (ji sedî çil) e.

Xala 68`mîn:

Di hemû pêvajoyên lêpirsîn û darizandinê de, mafê xweparastinê pîroze û parastiye.

Xala 69`mîn:

Bêyî biryara Dîwana Edaletê tu dadger ji kar nayê derxistin.

Xala 70`mîn:

Biryarên dadgehê bi navê gel têne girtin.

Xala 71`mîn:

Ne pêkanîna biryarên dadgehê, yan nehiştina pêkanîa wan, sûce û li gorî zagonan tê darizandin.

Xala 72`mîn:

Nabe ku mirovên sivîl li ber dadgehên leşkerî bêne darizandin û nabe ku dagehên taybet yan awarte bêne ava kirin.

Xala 73`mîn:

Hurmeta malan û cihên taybet nayên binpê kirin û bêyê erêkirina dadgehê nayên kontrol kirin.

Xala 74`mîn:

Mafê her kesî yê darizandina vekirî û dadmend heye.

Xala 75`mîn:

Destgirtina azadiya kesayetî bêyî sedemên mafdar sûce û li gorî zagonê tê darizandin.

Xala 76`mîn:

Her kesê ku di encama şaşîtî û nebaldariya erkdarên sazî, rêvebirî û kargêriyan de ziyan girtiye, mafê wî heye ku li ber dadgehên têkildar buhayê ziyanan bixwaze.

Xala 77`mîn:

Meclisa Dadgeriyê bi zagonekê tê saz kirin.

## Beşê heftemîn

## Komîseriya Bilind a Hilbijartinan

Xala 78`mîn:

Pergaleke serbixwe ye, kar û barên hilbijartinên giştî birêve dibe. Ji her kantonekî çend endam bi giştî  ji 18 endaman pêk tê. Endam ji aliyê Meclisa Zagonsaz ve têne destnîşan kirin.

1- Biryarên komîseriyê bi erêkirina 11 dengan têne girtin.
2- Endamên komîseriyê nabe ku xwe ji bo meclisa zagonsaz hilbijêrin.
3- Komîsetiya Bilind a Hilbijartinan demên lidarxistina hilbijartinan destnîşan dike û radighîne û daxwaznameyên namzetan werdigre..

4- Li gorî xala 51`mîn ya di derbarê namzetiya Meclisa Zagonsaz de, Komîseriya Bilind a Hilbijarinan daxwaznameyên namzetan lêkolîn dike. Her wiha ew lêvegera gilîname û dozên derbarê hilbijartinan de ye.
5- Kar û barên Komîseriya Bilind a Hilbijartinan di bin çavdêriya dadgehê, nûnerên saziyên civaka sivîl û li gorî derfeta nûnerên Netewyên Yekbûyî jî tê birêve birin.
**6-** Komîseriya Bilind a Hilbijartinan demekê diyar dike û hemû namzetan vedixwîne civîne kê û di civînê de bi alîkariya Dîwna Edaletê, navên namzetên herêm û navçeyan yên ku daxwaznameyên wan yên namzetiya Meclisa Zagonsaz hatine erê kirin aşkere dike

**Beşê şeşemîn:**

**Dadgeha Makzagonê a Bilind**

**Xala 79`mîn:**

a- Ji 7 endaman pêk tê yek ji wan seroke. Endam ji aliyê serokatiya Meclisa Zagonsaz ve têne pêşniyar kirin. Endam ji dadger, parêzer û mamosteyên Zagoniyê yên durist pispor pêk tê. Pêwîste pisporiya wan ne kêmî 15 salan be.
b- Nabe ku endamê Dadgeha Makzagonê a Bilind di heman demê de endamê çi rêvebiriyê yan yê Meclisa Zagonsaz be. Erkdariyên din yên ku pêwîste endamên dadgehê nekin bi zagonekê têne destnîşan kirin.
c- Dema endametiya di Dadgeha Makzagonê a Bilind de 4 salin, dikare ji bo carekê bê dirêj kirin.

**Erkên Dadgeha Makzagonê a Bilind**

1- Xalên makzagonê şîrove dike.
2- Li gorî makzagonê li biryar û zagonên ku Meclisa Zagonsaz û meclisa rêvebir distînin, dinere û lêkolîn dike.
3- Nakokiyên di navbera meclisên rêvebir, zagonzas û dadgeriyê yên derbarê pêkanîna makzagonê de çareser dike.
4- Darizandina rêvebirê kantonê û endamên meclisên zagosaz û rêvebir, yên ku li derveyî xalên vê hevpeymanê tevdigerin.
5- Biryarên xwe bi piraniya dengan digre.

Xala 81`mîn:

Ji bilî sedemên girêdayî bêrêtiyê, endamên Dadgeha Makzagonê a Bilind ji kar nayên derxistin. Kar û barên dadgehê bi zagona wê ya taybet tê birêve birin.

Xala 82`mîn:

Dadgeha Makzagonê a Bilind zagonên ku ne li gorî makzagonê ne wiha destnîşa dike:

1- Derbarê Zagonên ku ne li gorî makzagonê ne wiha biryar tê girtin :
a- Berî ku zagonek bê sazkirin, eger 20% endamên meclisê li dijî wê zagonê bin, pêwîste Dadgeh di nava 15 rojan de derbarê wê zagonê de biryarê bigre, eger zagon ji bo tiştekî bi lez be pêwîste di nava 7 rojan de biryar bide.
b- Dema ku biryarname ji Meclisa Zagonsaz re hate pêkêş kirin û di nava 15 rojên piştî pêkêşkirnê de eger ji 20% ji endamên Meclisa Zagonsaz li dijî vê biryarnameyê bin pêwîste dadgeh di nava 15 rojan de derbarê wê de biryarê bide.
c- Eger dadgehê biyar da ku zagon, biryar yan biryarname li dijî makzagonê ye, hemû xalên li dijî makzagonê têne red kirin û vegerandin û bê bandor dimînin.
2- Derbarê zagonên ku li dijî makzagonê ne eger di parêznameyêkê de dijberî hate nişandan wiha biryar tê girtin:
    a- Eger di dozekê de, yek ji aliyên dozê li dijî zagonekê di parêznameya xwe de dijberî nîşan da û da zanîn ku ew li dijî makzagonê ye û eger dadgeh bibîne ku ew dijberî girînge û pêwîste derbarê wê de biryarê bê girtin. Dadgeh dê dozê rawestîne û parêznameyê hewaleyî Dadgeha Makzagonê a Bilind bike.
    b- Dadgeha Makzagonê a Bilind pêwîste di nava 30 rojan de derbarê parêznameyê de biryar bigre.

**Hukmên giştî**

Xala 83`mîn:

Ev hevpeyman li herêmên rêvebiriya xweseriya demokratîk di pêvajoya demkî de pêkane, bi erêkirina ji 2\3 endamên Meclisa Zagonsaz tê guhertin.

Xala 84`mîn:

Ev peyman ji bo nirxandin û erêkirinê ji Meclisa Zagonsaz a demî re tê pêşkêş kirin.

Xala 85`mîn:

Yê ku ji bilî nasnameya Sûriyê nasnameyeke din wergirtibe nabe ku di rêvebiriya kantonê, serokatiya meclisan, şêwirdariyê û endametiya dadgeha Bilind a Makzagonê de cih bigre.

**Xala 86`mîn:**

Ev peyman dê bi zagonekê encamên biryar, biryarname û zagonên awarte çareser bike.

Xala 87`mîn:

Piştî ku ev peyman ji aliyê Meclisa Zagonsaz a demî ve were erê kirin bi 4 mehan, dê di bin siya peymanê de hilbijartinên yekemîn yên Meclisa Zagonsaz bê lidar xistin. Meclisa Zagonsaz a demî dikare li gorî mercan vê demê dirêj bike.

Xala 88`mîn:

**Sonda zagonî ya rêvebiriya xweseriya demokratîk**

Bi navê xwedayê mezin sond didim ku ez rêzê ji hevpeymana civakî û zagonên wê re bigirim. Ez azadî û berjewendiyên gel biparêzim. Ewlekariya herêmên rêvebiriya xweseriya demokratî, azadiya wê û mafê xweparastina rewa biparêzim. Li ser baweriya min ya bi netewa demokratîk, Ji bo pêk anîna dadmendiya civakî têbikoşim.

Xala 89`mîn:

Nûneriya herdû zayendan di hemû sazî, rêvebirî û desteyan de ne kêmî 40% be.

Xala 90`mîn:

Zagonên Sûriyê yên heyî (yên sivîl û cezayê) yên ku ne li dijî xalên vê peymanê bin, têne bikaranîn.

Xala 91`mîn:

Eger di navbera zagonên rêvebiriya xweser û yên rêvebiriya navendî de nakokî rû dan, mijar hewaleyî Dadgeha Makzagonî a Bilind tê kirin û zagona herî pêkan ji rêvebiriya xweser re ew tê pêk anîn.

Xala 91`mîn:

Ev peyman bi alîkariya welatiyan, parastin û pêşxisgtina xwezayê misoger dike û parastina xwezayê wek erkekî exlaqî, netewî û pîroz dibîne.

Xala 93`mîn:

Rêbazên perwedeyê yên nû dê siyasetên dûrxistinê û têgehên şoven û nijadpert rake û li şûna wan nirxên lêborîn û mirovahiyê û pir rengiya çandî û civakî deyne.

a- Di rêbazên perwerdeyê yên nû de herêmên rêvebiriya xweseriya demokratîk, gelên wê, dîrok, xanîgarî, şûnwar û dewlemendiyên wê têne nasîn.
b- Rêbazên perwerdeyê, dezgehên ragihandinê û saziyên zanistî dê çanda mafê mirovan û çanda zanistiya demokratîk pêşbixin.

Xala 94`mîn:

a- Di vê peymanê de ol û dewlet ji hev cuda ne.

b- Azadiya baweriyan bê sînor e. rêvebirî rêzê ji hemû ol û mezheban re digire. Eger ne li dijî sistema giştî be, mafê lidar xistina ayînên olî misoger dike û diparêze.

Xala 95`mîn:

Pêşxitina bi rêk û pêk ya di hêlên çandî, civakî û abûrî de yek ji hêmanên sereke yên yekîtiya saziyên rêvebiriyê û aramiya sistemê ye.

Xala 96`mîn:

**Rewşa awarte:**

Rêvebirê kantonê di civîna Meclisa Rêvebir a ku bi serokatiya wî lidar bike û bi erêkirina 2\3 endaman, dikare rewşa awarte ragihîne û betal bike. Lê pêwîste ku biryar di yemekîn civîna Meclisa Zagonsaz de bê pêşkêş kirin û erê kirin û hukmên wê yên taybet bi zagonekê têne destnîşan kirin.

Xala 97`mîn:

**Desteyên meclisa rêvebir**

1- Desteya têkiliyên derve.
2- Desteya ewlekarî û xweparastinê.
3- Desteya karên Hindurîn.
4- Desteya dadmendiyê.
5- Desteya rêveviriya herêmî, şaredarî. Pêve girêdayî komîteya serhijmartin û plansaziyê.
6- Desteya diravî (maliye) girêdayî wê 1- desteya giştî ya Bankan 2- desteya giştî a gumrikê.
7- Desteya kar û kar û barên civakî.
8- Desteya perwerde û fêrkirinê.
9- Desteya çandiniyê.
10- Desteya elektrîk, pîşesazî û dewlemediyên bin erd.
11- Desteya tenduristiyê.
12- Desteya bazirganî û abûriyê.
13- Desteya malbatên şehîdan.
14- Desteya çand û ragihandinê.
15- Desteya veguheztin û hevgihînê.
16- Desteya ciwan û sporê.
17- Desteya xweza, turîzim û şûnwaran.
18- Desteya kar û barên olî.
19- Desteya kar û barên jinan û malbatê.
20- Desteya mafên mirovan.

Xala 98`mîn:

Ev peyman di çapemeniyê de tê weşandin.